Destveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd
Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

agirî

Hejmar:139 Tîrmeha 2010 Buha: 150 Tûmen

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

**Dr. Qasimlo:**
Tu tiştek ji azadiyê binirxtir û pirrbuhatir nîne, azadî keramet û kesayetiyê dide mirovan û rê nade mirov bibe more



# Qasimlo,
# Gel Her Wefadar E Bi Te Û Rêbaza Te

## Birêveçûna çendîn rê û resmên cur bi cur bi boneya 22 ê Pûşperê

Bi hinceta 21'emîn salvegera şehîdkirina rêberê mezin yê gelê Kurd û Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, roja 22 ê Pûşperê, rê û resmek hêja li binkeya Deftera Siyasî birêve çû.
Di rê û resma han de ku bi beşdariya Sekreterê Giştî yê Partiyê, Endamên rêveberiyê, Kadro, Pêşmerge û malbatên wan birêve çû, Kerîm Perwîzî endamê Deftera Siyasî a Partiyê, peyama Deftera Siyasî a Partiyê pêşkeş kir ku deqa wê peyamê di paşkoya Taybet a Agirî de hatiye.

Herweha di hundurî Kurdistanê de, gelê Kurd bi awayên cur bi cur ligor rênivîniyên Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ, tevî mehkûmkirina kiryara teroristî a Komara Îslamî, peymana wefadariyê ligel rêbaza Dr. Qasimloyê nemir nû kirin û endam û alîgirên Partiyê jî çalakiyên berfireh ên teblîxatî birêve birin. Hûn xwendevanên hêja dikarin rapora kar û çalakiyên navxweyî welat di rûpela 2'ê de bixvînin.
Herweha li Parîsê li ser goristana Pirlaşêzê, li Viyenê û çendîn cihên din ên welatên Ewropî û Kurdistanê de, rê û resmên taybet bi wê hincetê birêveçûn.

# Peyama Xatûna Nesrîn Qasimlo Bo Xelkê Kurdistanê

Îro 21 sal bi ser ew bûyera dilêş ku em hemû ecêbmayî û reşpûş kirin, derbaz dibe. Rejîma Komara Îslamî a Îranê bi vê hêviyê ku gelê kurd dê dest ji xebatê ber bide, Sekreterê Giştî yê PDKÎ teror kir. Kiryara han a rejîma Komara Îslamî a Îranê ji aliyê gişt mirovên aştîxwaz û demokrat di seranserê cîhanê de hat mehkûmkirin.

Cînayetkar û bikujên mirovan di Îranê de hikûmeta xwe didomînin, ew biserhat û bûyerên ku di doma çend salên borî de qewimîn, vê hêviyê dide me ku roja roxana rejîma Komara Îslamî nêzîk e, lê hêviya bê xebat û çalakî, cîbicî nabe û bidest nahê.

Çalakî û xebata Dr. Qasimlo bo heyamê 44 salan di dîrokê de hatiye tomarkirin, wî bi hêviya vê rojê ku gelê Kurd bigîje azadiyê, xebat û çalakî dikir. Herçend ew niha ne di nava koma me de ye, lê îro nifşa ciwan pêgihiştine û rêya wî didomînin. Bi vê sedemê ku rêzgirtin ji bo mafê mirovan, xweşiyê dibexşe mirovan û xebat ji bo mafê mirovan, mirovan azad dike.

Ciwanên gelê kurd divê netirsane xebat û berxwedanê bikin. Ew sermayeya ku Dr. Qasimlo ji we re bi cî hiştiye, peyamek e ku divê hûn aqilane ji bo bidestxistina wê peyamê cehd û hewlê bidin.



**Nesrîn Qasimlo, Hevjîna Dr. Qasimlo**

# Perde Li Ser Monomênta Şehîdên Viyenê Hat Rakirin

Roja 17'ê Tîrmeha 2010'an, perde li ser mênomêntek bo şehîd Dr. Qasimlo û hevalên wî li bajarê Viyenê li beramber wê balxaneya ku Dr. Qasimlo, Ebdula Qadirîazer û Fazil Resûl, ji aliyê desteyek terorîstên şandî ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve hatibûn şehîdkirin, hat rakirin.

Li gor nûçegihaniya Kurdistanê, damezrandina vê monomêntê û rêvebirina wê rê û resmê bi hewl û tekoşîna Eta Nesîrî xebakarê kevnar ê PDKÎ û hevjîna wî Arizû Nesîrî hat encamdan.

Di wê rê û resmê de, çendsed kes pêkhatî ji Kurdên akinciyên Otrîşê û herwiha Kurdên welatên Ewropayê ku piraniya wan endamên PDKÎ bûn û hejmarek ji çalakên siyasî û tekoşerên kevnar ên tevgera rizgarîxwaza gelê kurd beşdar bûn.

Herwiha di vê rê û resmê de, perde li ser monomênta şehîdan, ji aliyê Nesrîn Qasimlo, hevjîna şehîd Dr. Qasimlo û Eta Nesîrî ve hat rakirin û ev rê û resme bi pêşkêşkirina gotarekî kurdî a Nesrîn û Eta dest pê kir.

Tê zanîn şandekî PDKÎ bi serperestiya Hesen Şerefî, cihgir Sekretêrê Giştî ê Partiyê û tevî hejmarek ji endamên rêberiya PDKÎ beşdar bûn. Piştî rakirina perde li ser vê monomêntê, Hesen Şerefî, tevî danîna tace golek li pêşiya vê monomêntê, gotarek li ser kesatiyetiya Dr. Qasimlo û herwiha tawana terorîstî û helwesta hikûmeta wê demê a Otrîşê bo beşdaran axifî û sipasî ji berşdariya berbiçav a tekoşerên Kurd di vê rê û resmê de kir. Herwiha sipasnameyeka Deftera Siyasî ya PDKÎ bo rêzgirtin ji zehmet û tekoşîna komîteya monomênta Dr. Qasimlo hat pêşkêşkirin.

Di vê rê û resmê de, hejmarek ji nûnerên part û rêxistinên Kurdî ên parçeyên din ên Kurdistanê û hejmarek ji kesayetî û çalakên siyasî yên Kurd di vê peywendiyê de gotar pêşkêş kirin.







# Spasnameya Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ Ji Xelkê Kurdistanê û Endam û Alîgirên Partiyê

Xelkê mafxwaz ên Kurdistanê.

Endam û alîgirên PDKÎ!

Siwarçakên rêbaza pir ji serweriya demokrat, îsal jî we di 21'mîn salvegera terora nemirovane a rêberê jêhatî ê gelê me, Dr. Qasimlo de, pêşwazî ji gaziya me kir û bi lixwekirina kincên Kurdî û herwiha bilindkirina alaya şîn û vemirandina çirayên malên xwe bo heyamê 3 deqîqan wek hertim wê amagdariya xwe bi rêberê şehîd û partiya wî nîşan da û wê car din îsbatkirin cînayet û xedra karbidestên rejîma sêdare û terorê we ji bîr nekiriye.

Em agehdarin ku xebat û tekoşîna we bo rêzgirtin ji rêberê şehîd, di rewşekî de birêve çû kû desthilatdarên rejîmê bo pêşgirtin ji tekoşîn û çalakiyên we, gund û




bajarên Kurdistanê pirr ji hêzên çekdar û tepeserkar kiribûû di hemen demê de, bi gefxwarina sepandina cezayê girtîgehê û herwiha cirîmekirinê , dixwastin pêşî ji birêveçûna vê bizav û çalakiyê bigirin, ev yek nîşana tirsa rejîmê ji îrade û şoreşvaniya we ye.

Hogirên rêbaza demokrat!

Berdewambûna we li ser rêbaza Qasimloyê rêber û şiyanên bilinde we li hember mirovkujên Komara Îslamî, me bi serkevtina yekcarî hîvîdartir dike.

Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ bi hewce dizane sipasiya xwe pêşkêşî yek bi yeke we têkoşerên bike û rêz ji mandînebûnî û emegnasiya we bigire.

**PDKÎ**
**Komîsyona Teşkîlatê**
**17'ê Tîrmeha 2010 a Zayînî**
**26'ê Pûşpera 1389 a Rojî**

# Agehdariyek Ji Aliyê Komîsyona Teşkîlat a PDKÎ Ve Bi Merema Betalkirina Pîlanekî Din A Rejîmê

Heyamek e rejîma Komara Îslamî a Îranê, hejmarek ji kirêgirtiyên xwe li devera sînorê Turkiyê, Îran û Îraqê, di devera Mirgewer a bajarê Urmiyê de ku bi sêsînor tê naskirin, cihgîr kiriye. Cihên han nemaze, çiyayê Bozê Sîna, Dalanper û derdora vê cihê seyrangehê hejmarekî zêde ji xelkê bajarên Şino, Urmiye, Pîranşar û Mehabadê serdana wan cihan dikin û kirêgirtiyên rejîmê jî ku kincên kurdî lixwekirine û xwe bi pêşmergên PDKÎ didin nasîn, xwe ji xelkê nêzîk dikin.

Bi vî awayî radigehînin ku ew




kirêgirtiyan tu peywendiyek tevî PDKÎ nînin û xelkê agehdar dikin ku xwe ji rabûn û rûnîştn û tevgeriyana bi wan re biparêzin û nekevin telika wan. Hewceye bihê rohnkirin ku merema rejîmê ji vî karî, evaye ku bizane xelk çi kiryarekî ji xwe nîşan didin û çawa riftarê di gel wan de dikin. Ji aliyek din ve bi vî awayî kesên şoreşgêr û welatparêz ên kurd destnîşan dike û dixin telika xwe de.

**PDKÎ**
**Komîsyona Teşkîlat**
**17’ê Tîrmeha 2010 a Zayînî**
**26’ê Pûşpera 1389 a Rojî**

# Daxuyaniya Deftrera Siyasî

**Xelkê welatparêz ên Kurdistanê!**

Çend sal e ku çêrîngeh û daristanên Kurdistanê ligor pîlanek darêtî tên şewitandin. Ev şewitandine di meha Tîrmeha îsal de, zêdetir bûye û metirsiyek mezin û xesarek qerebûnekirî xistiye ser jiyana heywan û malatan, û bûye sebebê têkdana xwezaya bedev a deveran, herweha zirar gihandin bi çêrîngeh û beşek ji wan daran ku çavkaniya dahata xelkê herêmê pêk tîne. Beşek ji wan cihên ku di meha Tîrmeha îsal de hatine şewitandin bi vî awayî ne:

**Pawe**: Çêrînghên Mererxêl, Noriyaw, Perwînê, Hîrwê, Nicar, Maygezen, Belebizan, Nerwî û Bayîngan.

**Merîwan**: Berdebûk, Derawbalek, Kilawkew, Cejniyaw, Nigil,

**Sewlawa**: Derdora bajarên Sewlawa û çend cihên din.

Li bajarên Sine û Bokanê de jî, çend zewiyên cotkariyê di çend gundên deverê de hatine şewitandin.

Şewitandina herî dawîn di çêrîngehên gundê Nê a ser bi bajarê Merîwanê bû ku bi xweşî ve bi hewl û cehda ciwanên wî gundî û hevkariya Civata Kesk a Çiyayê Merîwanê, agir hatiye temirandin ku cihê rêz û destxweşiyê ye. Li gor ew zanyariyên ku gihîştine destê me, şewitandina daristan û çêrîngehan di beşek ji van deveran de, seba topbarankirina hêzên rejîmê bûye û bi raya xelkê herêmê, şewitandina cihên din jî her karê rejîmê bûye.




Armanc ji birêvebirina pîlana han a dijî mirovî, pêkanîna zext û givaşên zêde ye bo ser xelkê deverê, daku teslîmê siyasetên dijî gelî ên rejîmê bin. Her wek van kiryarên ku rejîmê di 31 salên borî de weke bengdarkirina ciwanan, girtin û îşkencekirina xebatkarên riya azadiyê, besîckirina xelkê û pêkneanîna derfetên karî ji bo xelkê û bi dehan pîlanên nemirovane ên din, xwe lê neparastiye.

Ji ber ku Çêrîngeh û daristan park in ji samana nîştimanî, erkê desthiltê ye ku parêzgarî ji vê samana netewî bike, lê mixabin li dema agirgirtina wan daristanan de ji aliyê îdareyên rejîmê yên agir temirandinê û parastina jîngehê ve, ku li wan deman de erkê ser milê wan e bilez û bi hemû îmkanatên ku li ber destê wan de ye ji bo berbendkirin û temirandina cihên agir girtî têbikoşin, lê tu hewlek nehatiye dayîn.

**Hevwelatiyên birêz!**

Bi vî awayî ku rejîm tu hewl û kiryarekê ji bo temirandina wan agiran ji xwe nîşan nade, derdikewe ku agir berdana çêrîngeh û daristanên kurdistanê karê rejîmê bi xwe ye û merema rejîmê ji vê pîlanê têkdan û kirêtkirina siroştê kurdistanê û qutkirina çavkaniya jiyan û bijîva we ye, lewre parastina vê samana nîştimanî dikewe ser milê we bi xwe.

Deftera siyasî a PDk Îranê tevî mehkûm û şermezarkirina vê pîlan û kompiloya nemirovane, daxwaz ji xelkê Kurdistanê dike ku ji niha şûnde, çavnihêriya rejîma neberpirs û dijî mirovî a Komara Îslamî nebin û li rewş û zirûfek wiha de bihevre û bê derengî û xwe gîrokirin ji bo temirandina wan agiran têbikoşin.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**30.04.1389'ê Rojî**
**21.07.2010'ê Zayînî**

# Kesayetiya Dr. Qasimlo Ji Dîtingeha Hevçeper Û Hevalên Wî Ve

**Hevpeyvîn: Dara Natiq**

**Xwendevanên hêja û birûmet yên rojnameya Agirî, wek dizanin di 22'ê Pûşpera îsal de 21 sal bi ser terorkirina rêberê karîzmatîk û pêxemberê aştîxwaz yê kurd Dr. Qasimlo, Sekreterê giştî yê wê demê ê PDKÎ bi destê rejîma Mirovkuj û terorîstperwer a Komara Îslamî a Îranê re derbas dibe. Lewma me bi hewce zanî bi vê hincetê raya çend heval, hevbîr û hevçeperên Dr. Qasimlo ku bi salan pêre jiyane, li ser bîr û hizrên wî li dor mijarên cur bi cur bistînin.**



Dr. Qasimlo û Teymûr Mistefayî

*Dr. Qasimlo herdem digot ku min xirabtirîn demokrasî ji baştirîn dîktatoriyê baştir e*

**Rêzdar Teymûr Mistefayî, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ nêrîna Dr. Qasimlo ji bo xebat li dijî kevneşopî, dîktatorî û faşîstê bi wî awayî şirovekir.**

Kevneşopî di nêrîna Qasimlo de pêk hatibû ji hercure bîrtengî û hişik bûn ji hizr û bîr û xwegirêdan bi rewişt û tîtalên kevn re. wî digot divê siyasetekî serkevtî û bîr û hizrekî pêşkevtî, li gor zeman bihê guhertin û nûkirin.

Di çarçoveya vê bîr û bawerê de bû ku dijberiya dîktatoriyetê dikir û bawer bû ku faşîzm û kevneşopî bi hegera wan taybetmendiyên ku hene asteng û berbestên sereke yên pêşveçûna civakê ne, lewra bi awayekî micid dijberiya wan dikir.

Wî herdem digot ku min xirabtirîn demokrasî ji baştirîn dîktatoriyê, pê baştir e. Bîra min tê ku di civînekî Komîteya Navendî de li sala 1365'a Rojî de, yek ji hevalan piştgirî ji mijarekî ku ji pirtûkên partiya Tûde wergirtibû dikir, Dr. Qasimlo jêre got hevalê hêja! ew pirse niha êdî kevin bûye û ev hevalê me bi wê gotinê nerehet bû û got yanî tu dibêjî ez kevneperest im! Qasimlo jêre got ku tu ne kevneperestî, lê ev mijara ku tu bas dikî kevin bûye çimku cîhan hatiye guhertin û em jî dibe vê guhertinê berçav bigrin eya ku parve nemînin.

Di nava partiyê de jî cehd dikir ku biryarên partiyê bi pirraniya dengan werin pejirandin û pêşî ji tekrwiyê bihê girtin. Dr. herwisan derheq guhertina tîtalên paremayî yên civakê bawermend bû ku hewce ye beriya herkesî hevalên partiyê ji xwe ve dest pê bikin heya ku bikarin xwedî bandor bin li ser xelkê din.

***



Rostem Cehangîrî

*Tim hewil dida ku rêberiyek bihêz, bedeneyek hişyar û çeleng, partiyek modern û pêşkevtî li gor yasa û pîvanên cihanî perwerde bike*

**Rêzdar Rostem Cehangîrî, endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ jî taybetmendî û karêkterbûna Dr. Qasimlo di warê modîriyet, bi rêveberî û îdarekirina PDKÎ de wiha analîz kir.**

Dr. Qasimlo di rewş û zirûfekî pir sext û dijwar de rêberiya tevgerek azadîxwaz û çekdarî a gelê kurd li rojhilata Kurdistanê de dikir. Di zirûfekî de ku nebûna kadir û pêşmergên pispor û xwedî zanist ku bikaribin siyaset û armancên PDKÎ bibin nava xelkê û bersivderê zirûfa wê demê bin.

Navbirî herdem li dij kultûra tak perestiyê di nava PDKÎ bû û hertim hewil dida ku endamên partiyê bi awayekê perwerde bike ku şiyana îdarekirin û rêvebirina vê tevgerê di her zirûfekî dijwar û nemaze di dema nemana wî de jî hebin.

Dr. Qasimlo, serbarê îdarekirin û rêxistin a siyasetên partiyê di asta cîhanî û hundurî de, nemaze di zirûfa wê demê de ku Kurdistan û hêza pêşmerge berbirûyê şerekî sext û dijwar de hatibû bûn, herdem pêwendiyên berdewam tevî organ û bedena partiyê hebû û rênivînî ya wan dikir, Navbirî her dem dijî rewişt û tîtalên kevneşop bû û berdewam pêşmerge han didan ku xwe li gor zanist û teknolojiya serdem teyar bikin û bi çanda demokrasî û serbixweyî û piştrastbûn bi hêz û îradeya xwe perwerde bibin. Tekezkirin li ser serxwebûna partiyê eslek bû ku navbirî kire rêçik û rêbazek bingehîn di nava kadir û pêşmergên partiyê de.

Girtina Konfirans, Kongire û civînên partiyê û organîzekirina rêxistinên partiyê li gor bername û pêrewa navxwe û di dema diyarî kiriye xwe de, serbarê hebûna zirûfa sext û dijwar awê demê, nîşaneya birêveberî û demokratbûna wî rêberê mezin bû.

Dr.Qasimlo baweriyek kûr bi nifşa ciwan hebû. Lewma berdewam hewl dida ku di dema hilbijartin û organîzekirina partiyê de nifşek ciwan û ektîv bibin berpirs û birêveberê organên partiyê. Navbirî seh bi wê çendê dikir ku temenê wî kurte, lewma bi hemû avayekê cehd dikir ku rêberiyekî bihêz û bedeneyek hişyar û çeleng û partiyeke modern û pêşkevtî li gor yasa û pîvanên cihanî perwerde bike daku bikarin li ser pêyên xwe bisekinin û bersivderê her cure rewş û zirûfekî cîhanî û herêmî bin.

Ew hewl û mandîbûna Qasimlo di vê warê de karî bandorek mezin li pêvajoya pêşvebirina xebata partiyê de bicih bihêle û niha piştî derbazbûna 21 salan bi ser şehîdbûna navbirî de, rivîngên rêbaza wî berdewamin li ser wergirtina mafên berheq ên gelê xwe.

***



Husên Nazdar

*Dr. Qasimlo li ser vê bawerê bû ku diviya bo nifşa ciwan û jinan di nava partî û civakê de derfetên azad û demokratîk pêk werin ku astê zaniyarî û hişyariya wan li ser bingeha hez û maf û erkên xwe û civakê jêhel bibin*

**Rêzdar Husên Nazdar, endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ jî bîr û bawerên Dr. Qasimlo derheq lawan, jinan û pêgeha wan di PDKÎ de wiha nirxand.**

Dr. Qasimlo li ser vê bawerê bû ku law milê bi qawet yê xebat û berxudaniya gel e, çavkaniya hêz û moralê ye, hêza xwîngerm û bizvandin û xwedîbandor a welat e, hêza sereke a kar û berhem û avakirina jiyanê ye, alîgirê guhertin û nûbunê ye, hertim bi cangorîtî û xwe gorî kirinê ve beşdarî her cure tekoşîn û tevgerekî azadîxwazî û mafxwazî û wekheviyê dike. di pêwenidiyên mirovî de alîgirê niyetpakî û rastbêjiyê ye, çavkaniya seh û xweştevî bûnê ye. Law nifşa nû û hêviya paşeroja gel û welat e.

Di pêwendî tevî mafê jinan de, Dr. Qasimlo dijî zulim kirina mirov bi destê mirov bû, baweriyekî kûr bi mirovtewerî û yasa serweriyê hebû, ew li ser vê bawerê bû ku dibe bi yasayekî demokratîk û dadperwer û bi avayekî zelal û eşkere rê û cihê maf û erk û huremt û kerameta mirovan bihê diyarî kirin û bi kiryar pêngav ji bo cî bi cî kirina wan werin avêtin, baweriyekî kûr bi mafê wekhev di navbera jin û mêran de hebû.

Dr. Qasimlo li ser vê bawerê bû ku diviya bo nifşa ciwan û jinan di nava partî û civakê de derfetên azad û demokratîk pêk werin ku astê zaniyarî û hişyariya wan li ser bingeha hez û maf û erkên xwe û civakê bilind bikin û bi kiryar temrîn û rikeberêya azadî û demokrasiyê bikin û fêr bin ku çavan ji fersed û delîveyên jêhatî mifahên hewce werbigrin û li ser qedera siyasî a xwe û gel û welatê xwe bi avayekî serbest biryara xwe bide, zirûf û delîveyên baş ji wan re pêk bên ku di serwerî û deshilata partî û civakê de, li gor şiyan û jêhatîbûna xwe xwedî rol bin.

***



Dr. Qasimlo û Hesen Şîweselî

*Ligor Dr. Qasimlo, mebest ji karên terorîstî, alozkirin û tevlîhevkirina civakê, serdestkirina tirs û wehşetê di nav xelkê de ye daku terorîst bikarin bigihîjên mebestên siyasî û îdeolûjîkên xwe*

**Herwiha derheq, nêrîna Dr. Qasimlo li ser tetor û terorîzmê de Mamosta Hesen Şîweselî, endamê Îftixarî yê Komîteya Nawendî ya PDKÎ wiha axifî.**

Di bersiva pirsa we de dibêjim, demek bû ku min peyva terorîzmê bihîstibû, dema ku min bîr ji manaya wê dikir, min jêve bû ku bi manaya peyva kurdî a têrohatin ê ye, anku ji cihekê hilgirtin û birin bo cihek din e. Lê pişre ku hevalên me bi taybetî Dr. Qasimlo yê nemir bas ji terorîzmê dikir, pêtir manaya wê bo min zelal bû û ez berfirehtir û kûrtir ji manaya wê têgîştim. Ewa ku min ji hevalê xwe û Dr. Qasimlo bihîstiye eve ku, terorîzim weke diyardeyek qirêj di nav civaka mirovî de her di destpêka çêbûna civakên mirovatiyê ve heya niha her hebûye û bi qonaxên cur bi cur de derbaz bûye û şikl, şîwe û bîçmên cur bi cur bi xwe ve girtiye. Terorîzm jî weke hemû diyardeyeke din ên civakî di warên cur bi cur de geşe kiriye û ber bi pêş ve çûye. Her wek niha em dibînin Elqaîde û girûpên din di warên cur bi cur de şiyaneke zaf bidest xistine. Her wek me di salên dawî de dît ku terorîstan bi çend balafirên tejî ji jin, mêr, zarok û hemû alav û îmkanatên xwe ve, xwe bi burcên Cemik de kişandin, ew jî di welateke mezin yê senetî ê weke Amerîkayê de. Peyva teror û terorîzim, ew peyv bûn ku Dr. Qasimlo zaf caran bas jê dikir û bi nîgeraniyek zêde ve di piraniya rûniştin û kombûnan de dianîn ber bas û di zaf ji gotarên Dr. Qasimlo de basê teror û terorîzmê bi hûrî hatiye kirin. Ez nikarim bêjim ku hemû gotinên Dr. Qasimlo li ser teror û terorîzmê di hizra min de mane, lê beşek zaf ji wan di mejiyê min de mane. Min jêva ye ku di bêsedem nine ku em vegerin ser wê pênasa giştî ya ku Dr. Qasimlo li ser terorîzmê dikir. Ew pênase ev bû ku terorîzim bi şîweya micid û neasayî, ji rêya tirsandin, gef, tundûtûjî, girjî û aloziyê ve, ku ji aliyê tak a carna ji aliyê girûpan ve û carna gelek berfirehtir ji aliyê dewletan ve çi di hundrê xwe û çi li derve dihê encam dan. Terorîzim hin caran riha mirovan dike armanc, hin caran jî bi bumbe û alavên teqemeniyê, binke û binyadên dewletî û nedewletî wêran dike û heta heyî û îmkanatên mirovên bê guneh jî jinav dibe. Ligor boçûna nemir Dr. Qasimlo, mebest ji encamdana karê terorîstî, alozkirin û tevlîhewkirina civakê, serdestkirina tirs û wehşet û tirsandina xelkê ye ku terorîst bikarin mebestên siyasî yan mebestên îdeolûjîkîn ên xwe, êca bi her nirxek be yan ji her kesek be, çi tak, çi civak çi dewlet, bi zorî di riya girjî û aloziyê ve bidest bixe. Dema ku Dr. Qasimlo bas ji terorîzmê dikir, bizav û aksiyona terorîstî weke niha nehatibû organîze û sîstematîzekirin. Lê dîsan Dr. Qasimlo yê nemir bawer bû ku terorîzim dê bihê organîzekirin û hêdî hêdî pêtir dê belav bibe, û eger hewleke navxweyî û cîhanî li hember terorîzmê de nehê dan, ew diyarde dê pêtir sîstimatîze bibe û bi awayek sîstematîk akinciyên ser wî erdî dê tûşî tirsan û beicandinê bike. Ewa ku min ji gotinên Dr. Qasimlo di hizra min de mabin, wî jêwa bû ku terorîzim di 3 cihan de serî hildide. Di çarçûveya malbatê de, di çarçoveya civak û welat de û di çarçoveya navnetewî de. Gelek cinayetên mezin ên terorîstî piştî koça Dr. Qasimlo di cîhanê de rû dan, ku bi bawera min Dr. Qasimlo bi terzekê hest bi wan cure metirsiyane dikir. Dr. Qasimlo alozî, newekhewî û bêedaletî a di nava malbatekê de bi curek ji terorê dihesiband. Wî gelek caran bas ji şîweya jiyanê di malbanên Kurdî de dikir.

Bêdesthilatiya jinan, bikaranîna wan weke alavek, azardana zarokan di nav malbatê de, guhnedan û bawerî nekirin zarokan, cudahî danan di navbera keç û kuran, marekirina mezin bi biçûk û biçûk bi mezin, bi zorî bi mêrdana keçan, xwe kuştin û xwe şewitandina wan, bi gorîbûn û kuştina jinan, bi karê terorîstî dizanî. Ewa bû ku bi bandora bîr, boçûn û pêşniyarên Dr. Qasimlo, di demê ku Partiya Demokrat di kurdistanê de desthilat hebû, parêzgarî ji jinan di kir, parêzgarî ji zarokan di kir, bi tundî pêşî ji mezin bi biçûk, biçûk bi mezin û bi zor bi mêrdan girt û sizaya çiyaw di wî warî de diyarî kir. Kêrhatî.

Ew bizav, ew kar û kiryar hemû di encama pêdagirî, givaş, bîr, û boçûna Dr. Qasimlo de hatin encamdan. Dr. Qasimlo li ser kêm û kurtiyên nav civakê û şopa çanda jehrayî a dujminan, her ji zû ve heya niha gelek tişt gotine ku li vî îmkan û cihê wê yekê nine ku hemûyan bas bikin û gelek tişt jî li ser wan cinayetan ên ku dujminan li himber gelê Kurd kirine nivîsandiye. Dr. Qasimlo jêra bû ku di

civaka Kurdewarî de gelek karên terorîstî bi taybetî di dewrana erbab û reyetî û milkdarîtî de hatine encamdan ku hemû di encama sîstema fikrî a wê demê de qewimîne û bawer bû ku bi hemû şîweyek û bi hemû alavek pêşgirî li zîndîkirina vî sîstema fikrî bihê kirin. Bîr û boçûna Dr. Qasimlo di peywendî digel terorîzmê de, bîr û boçûneke cîhanî bû. Wî civakên Rojhilata Navîn dîtibû, civakên welatên Ewropa û dinyaya derve jî dîtibû, agadariyek baş ji dîroka cîhanê bi taybetî dîroka Kurdan hebû. Di warê zanista maf de şarezayî hebû, di zanista aborî de mamosta bû, wî seba şarezayiyek zaf di warê zanista aborî, temisandina mirov bi destê mirov, gelek pisporane şirove dikir û ji bo zelalkirina wan pirsgirêkan, bi hemû şiyana xwe, cangorîtî û xebat û tekoşîn dikir. Ew bawermend bû ku terorîzmê di dîrokê de berfireh bûye û di hemû qonaxên dîrokê de bi şîweyên cuda û rengên cur bi cur, derketiye Di dewrana tarîtiya dîrokê de, di rojgarên sedsalê navîn de heya digîje dewrana serhildana marksîzim, lînînîzim û sosyalîzim û pêştre jî bi roxsar û bîçmên cur bi cur xwe nîşan daye. Di nav çepan de, di nav rastan de, di nav nasyonalîstên tunajov de, di nav regezperestan de û heta di nav şoreşgêrên cîhanê de, bi awayek zeq û aşkera tê dîtin.

Dr. Qasimlo weke şoreşgêrên rastbîn ên cîhanê hizir dikir.

***



Şaho Husênî

*Dr. Qasimlo li ser vê baweriyê bû heya em bi xwe di meydanê de nebin, em di qada navneteweyî de nikarin xwedî bandor bin û tu kes guhdariya me nake*

**Derheq girîngiya siyaset û dîplomasiyê li dîtingeha Dr. Qasimlo û rolê wî di nasandina tevgera rizgarîxweaz a gelê Kurd di cîhana derve de, Şaho Husênî, endamê Komîteya Nawendî ya PDKÎ wiha raya xwe anî ziman.**

Dr. Qasimlo bi nîsbet çareserkirina doza Kurd bawermend bû ku beriya hertiştî divê netewa Kurd hevgirtî be û li ser bidestveanîna mafê berheq yê xwe ku daxwaz û xwastekên berheq û demokratî in micd û pêdagir bin, helbet Dr. Qasimlo di vê qadê de bandorek hêja hebû û di berfirehkirina xebat û tekoşîna PDKÎ û bihêz kirina vê partiyê de xwedî rolek berçav bû.

Navbirî hertim jêvebû ku heya em bi xwe di meydanê de nebin, em di qada navneteweyî de nikarin xwedî tu bandorekê bin û tu kese guhdariya me nakin, Ku wisan bû beriya hertiştekî bo her pêngavekî di asta herêmî û cîhanî de, ji derwazeya pêgeha Kurd û asta şiyan û jêhatîbûna tevgera Kurd ve, mêzeyê pirsan dikir.

Jêhatîbûn û pisporiya Dr. Qasimlo û herwiha hebûna hevalên xuya û berçav ku bandora wan di darêtina siyaseta welatên xwe de xuya bû, harîkariya navbirî dikir ku bo nasandina doza Kurd, reyên taybet bibîne û ji hemû delîveyekî bo nasndina doza Kurd mifahê bistîne.

Dr. Qasimlo bi eşkere ji hikûmet û kesayetiyên Rojavayî re digot ku dema ku em bombeyan nadanên, mirovan bi rehîn nagirin û bo gehîştin bi armancên mirovî yên xwe ji kiryarên terorîstî mifahê wernagrin, dibe li gor pirensîbên navneteweyî hûn piştevaniya siyasî ji me bikin û hûn nikarin xwe ji vê piştevaniyê dûr bigirin.

Lê cehed û tekoşîna berçave Dr. Qasimlo bû ku karî bala dost û kesatiyên berçav di asta cîhanî de bo berevanîkirin ji Kurd û xwastên berheqe wan rabikêşîne.

***



Ebdula Hicab

*Hunera Dr. Qasimlo ya siyasetê di şiyana wî ya pirralî de bû. Ew siyasetvanekî hûrbîn û kesayetiyek dûrbîn bû*

**Derheq astê zanistî û hûrbîniya Dr. Qasimlo di warên cur bi cur û nemaze di warê zanista siyasî, abûrî û civakî de rêzdar Ebdula Hicab, Şêwirmendê Komîteya Nawendî ya PDKÎ jî wiha raya xwe anî ziman.**

Hunera Dr. Qasimlo ya siyasetê di şiyana wî ya pirralî de bû. Ew tenê bi mekanîzmên kilasîkên deselat û biryardanê ve girêdayî nebû. Di dema pêwîst de wek fermanderekê bi biryar bû, paşan dibû edîbek xwediyê hestên nazik û bi helbest û edebiyatê meclîsa ku tê de bû dixemiland. Gelek warên kultûr û kevneşopiya welatê xwe nas dikir û hin caran bi henek û laqidiyekê serdestiya xwe di civata ku tê de bû, nîşan dida. Ew bi rewşnebîran re rewşenbîr, bi gundiyan re gundî, bi siyasetvanan re siyasetvan û bi zaniyaran re pisporê abûriyê bû. Her ew kultûra vekirî û pirralî karîzmayek dabû Qasimlo ku bi awayek xwezayî, li her ku ba ev dikire pêşeng. Bi kurtî Qasimlo rewşenbîrek siyasî û siyasetvanek rewşenbîr bû.

Siyaset û birêvebirina tevgera neteweyî li Rojhilatê Kuridstanê derfetek wisan neda Dr. Qasimlo ku şiyana xwe di warê zanista abûrî de ji bo demek dirêj bikar bîne. Lê Dr. Qasimlo zanist û pisporiya xwe di wî warî de jî xistibû xizmeta doza neteweyî. Dersên ku di fêrgeha partiyê de ji kadro û xebatkarên partiyê re digot heya korsên ku ji endamên Komîteya Navendî û siyasetvanên derdora xwe re datînan, hemûyan nîşan didan ku Dr. Qasimlo hewl dida zanebûna xwe di wî warî de derbasî nivşa nû û xebatkarên siyasî yê netewa xwe bike. Teza wî ya doktorayê jî her di heman çarçoveyê de bû. Di wê meydanê de jî Dr. Qasimlo hewl daye abûriya Kurdistanê li ser bingeha nêzîkbûna sosiyalîstî li abûrî û civaknasiyê bi awayek zanistî pênase bike heya ku bi wê riyê ve xizmeta neteweya xwe bike.

Dr. Qasimlo hem siyasetvanek hûrbîn bû hem jî kesayetiyek dûrbîn bû. Tu gav ji bo qazanca demê pîvan û prensîpên ku bawerî pê hebû nekirin qurbanî û wisan bi hişkî jî bi qalibên kilasîkên siyasetê ve xwe girê neda ku rê jê bigre heya di dema pêwîst de nekare manovrên siyasî bide.

Lewma bi micidî ji armanc û daxwaziyên gelê xwe xwedî derdiket û bi şiyarî di dema pêwîst de nermî ji xwe nîşan dida.

Qasimlo derfetnas û dijminnas bû, lê mixabin her ev nasîna bû bela serê wî.

# Netewa Belûç û xebat ji bo mafên xwe

**Nasîr Salihîesil**

Xebat ji bo mafên netewî, xebatek mirovî û mafxwazane ye ku di çarçoveya yasa û rêsa yên pejirandî ên navnetewî de jî tên piştevanîkirin. Her çend di sedsala derbazbûyî de rejîmên beredayî û totalîter di hizra helandin û ji holêrakirina netewên bindest de bûn, lê îro rojê xebata van netewan saziyên navnetewî ve tên piştevanîkirin.

Yek ji wan netewên bêdewlet, netewa Belûç e ku bi zimanê Belûçî diaxifin, ku axa welatê wan bi ser 3 welatên Îran, Pakistan û Efxanistanê de hatiye pervekirin

Gelê Belûç di Îrana pirnetewî de li parêzgeha Sîstan û Belûçistan, Kirman, Xuzistan û Hurmizganê de akincî ne.

Belûç yek ji netewên temisandî û mafbinpêkirî yê Îranê ye. Netewa Belûç di asteke pirr zêde a nexweşî, bêkarî, lawazî û bêîmkanatiyê de dijît, di halekê de beşek ji zêde ji axa wê deverê seba hebûna kanîyên binerdê, ji bo pîşesazîkirin û beşek din bi taybetî qeraxên behra Omanê ji bo geşekirina abori ya cotkari ya, ajeldarî û pirr dewlemende. Lê siyaseta tunekirina Komara Îslamî, pêkhatiye ji kuştin û valakirinê deverê. Seba



şopandina vê siyasetê beşek zaf ji Belûçan warên xwe bi cih hiştine û di bajaran de mijûlê kirêkariyê ne yan jî derbazî diyasporayê bi taybetî welatê Pakistanê bûne.

Belûç di dîroka xwe netewî de ku hertim hawrê ye digel êş û azar û bêparî ji mafên destpêkîn ên xwe, lê hertim hewl ji bo azadî û rizgarî ji desthilata serberedayî a navendî da ye. Ji aliyek din ve xebata çekdarî li Belûçistanê bi dijî desthilata nawendî di Îranê de dîrokek kevn heye û niha jî her berdewam e. Lê seba arîşeyên zêde, nekariye gelê Belûç bi awayek pêwîst di derdora xwe de kom bike.

Ji aliyek din ve rejîma Komara Îslamî ciwanên Belûç bi tawana qaçaxiya madeyên hişber yan hevkarîkirin ligel biyaniyan îdam dike.

Xelkê Kurdistanê Bi Yekdengî Rejîma Komara Îslamî, Şermezar Kirin,

## Endam Û Alîgirên PDKÎ Bi Hinceta 22'ê Pûşperê, Çalakiyên Teblîxatî Encam Dan

Endam û alîgirên PDKÎ di pirraniya bajar û bajarok û gundên Kurdistanê de bi belavkirina wêneyên şehîd Dr. Qasimlo û tirakt û fîlmên Partiyê, nivîsîna dirûşmên şoreşvanî, hildana alayê Kurdistanê û alayê şîn di nava bajar û cihên bilin de, çalakiyên berfireh ên teblîxatî birêve birin.

Ew bajarên ku çalakî têde hatin encamdan bi awayê jêrîn in:

Selmas, Urmiye û deverên Tirgewer û Mirgewer, Şino, Nexede, Pîranşar, Mehabad û deverên Şarwêran û Şamat, Bokan û deverên çemê Mecîdxan û Pîrmihemed û Mîrqaz, Sayîn Qela û Tikab, Tewrêz, Dîwandere, Sine û deverên Jawero, Merîwan, Bane, Serdeşt, Rebet, Kirmaşan, Pawe, Selas bawecanî, Kamyaran, Hewşar, Newsûd û Serpêl û Zehaw.

Hêjayî gotinê ye ku zirofa pirraniya bajaran, nemaze bajarên weke Bokan, Mehabad, Şino, Sine, di bereberê 22ê Pûşperê de, bi tewahî hatibûne milîtarîzekirin û keş û hewayek ewlehî bi ser wan de hatibû sepandin. Herwiha hêzên rejîmê heyamek beriya vê rojê gişt bazarî û dukandar agehdar kiribûn û gef ji wan kiribûn ku nabe vê rojê bikin tetîl û divêt werin ser karên xwe.

Herwiha roja 21'ê pûşperê Îdareya Zaniyarî a Rejîmê di bajarên Kurdistanê de ava pirraniya fîlke û meydan û ava parkên bajaran ji tirsa vê çendê ku ava wan cihan weke sala borî ji aliyê xelkê ve bi rijandina rengê şîn, bihê şînkirin, qet kiribûn.

Lê xelkê welatparêz û azadîxwaz ên Kurdistanê di seranserê Kurdistanê de roja 22' Pûşperê, salroja şehîdbûna Dr. Qasimlo, serbarê vê yekê ku gişt kulan û şeqam ji aliyê hêzên rejîmê ve hatibûn milîtarîzekirin, bi lixwekirina kincên Kurdî û kincên reng şîn, reng û rûyê bajaran guhertibûn.

Xelkê Kurdistanê bi giştî û bajarên Mehabad, Bokan, Nexede, Şino, Sine, Seqiz, bi tewahî li ser bangewaziya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bi armanca mehkûmkirian şehîdkirina Dr. Qasimlo û hevalên wî ji aliyê rejîma terorîstperwer a Komara Îslamî û bilindragirtina bîra şehîdên Viyenê, bo heyamê 3 deqîqeyan çira û ronahiyên malên xwe temiriandin, daku bi vî awayî emegdariya xwe bo rêbaz û rêya Dr. Qasimlo nîşan bidin.

## Komeleya Kultûrî Ya "Yonşopîngê" Di Merasimekê De Dr. Qasimlo Bibîr Anî

Komeleya kultûrî ya bajarê Yonşopîng a welatê Swêdê, bi hilkevta 21'emîn salvegera terorkirina Dr. Qasimlo semînarek lidarxist.

Li gor rapora Nûçegihaniya Kurdistanê, hejmarek ji Kurdên her çar parçeyên Kurdistanê, bi merema bilindragirtina yad û bîranîna Dr. Qasimlo wek rêberekî mezin yê gelê Kurd, di vê semînarê de beşdar bûn.

Di vê semînarê de Idrîs Ehmedî, lêkoler li zanîngeha Stokolmê, di vê semînarê de, basek li ser biryara Dr. Qsimlo bo gotûbêjkirin tevî rejîma komara Îslamî a Îranê pêşkêş kir. Navhatî di behsa xwe de, sê fakterên sereke bo şirovekirina biryara Dr. Qasimlo bo gotûbêjkirin tevî Komara Îslamî a Îranê, dest nîşan kir.

**- Yekem,** bidawîhatina şerê Îran û Îraqê û nigeraniya Dr. Qasimlo derheq egera aştbûn û pêkhatina wan du welatan li ser hisaba gelê Kurd û encama nigetîv a rêkkevtinê bo ser bizava Kurd.

**- Duyem,** mirina Xumeynî û baweriya Dr. Qasimlo derheq egera pêkhatina guhartinê di Îranê de.

**- Sêyem,** çavnihêriya Dr. Qasimlo bi nîsbet Refsencanî weke siyasetvanekî Piragmatîst ku berewajiyê Xumeynî, amadeye pirsa Kurd ji rêya aştîxwazane ve çareser bike.

# Metirsiyên Ku Gefê Li Jiyanan Zarokên Serşeqaman dixwe



**A: Hemîd Muxtarî**

Peyva zarokên serşeqaman, bo yekemîn car di sala 1815an’ de, ji aliyê May Hoy, di Berîtaniyayê de hat bikaranîn û piştre di sala 1979’an de, di Amerîkayê de bû waje û pênaseyên cur bi cur di vê pêwendiyê de bi liberçavgirtina rewş, temen, helkevta coxrafiyayî, riftar û terzên pêwendiyan tevî malbatê hatin pêşkêşkirin.

Bo mînak: Li gor yek ji madeyên peymannameya mafê zarokan û saziya “UNICEF”ê, kesek ku temenê wî/wê, jêrî 18 saliyê be, zarok tê hesêb. (Peymanameya Mafê zarokan, 1989).

**- Zarokên serşeqaman ew kesin ku dibin goriyê desttengî, hejarî, bêbeşî, ferq û cudahî, koçberî û jordeçûna hejmara nifûsê. (Ekberîzade, Bîta, Bîna).**

**- Zarokên xiyewanî bi wan kesan tê gotin ku bi armanca domandina jiyana xwe neçar in di şeqam, park, meydanên bajaran û... kar bikin. ( Mecîd Muhteşemî).**

Ewa ku em dixwazin di vê nivîsê de bal bikişînine ser, bûna wan metirsyan e ku gefê Li Jiyanan Zarokên Serşeqaman dixwe.

**1- Metirsiya saxlemî û tûşbûn bi nexweşiyên cur bi cur**:

pirofesor **Wîlso** dibêje: “Saxlemî bi wateya zanist û fena kontrolkirin û piştgirîkirin ji nexweşiyan û bilindkirina astê temenê ye”.

Bo ewê ku zarok bibin xwediyê cesteyek saxlem, hewcye ku aliyê tendurustî liberçav bigirin û xwarinekê baş hebin û berdewam sporê bikin. Hewcehiyên ku zarok lê bêpar in û eva jî bûye sebeb ku tûşî nexweşiyên cur bi cur weke kêmxwînî, nexweşiya pêstî, çav, dil û... bibin.

**2- Bêparbûn ji perwerde û hînbûnê:**

Pêka madeyên 28 û 29 yên peymannameya cîhanî a mafê zarokan, gişt zarokan mafê vê yekê hene ku behremend bin ji perwerde û hînbûnê û erkê dewletan e ku amrazên hewce û bêberamber bo hemû zarokan dabîn bike. Herwiha armanca perwerde û hînkirinê divê di xizmet xurtkirin û pêşxistina şiyanên zarokan de be û zarokan weke kesên ektîv û çeleng di civakê de amade û perwerde bike. (peymannameya cîhanî a mafê zarokan, UNICEF)

**3- Ketine ber destdirêjî û azarên cinsî:**

Metirsiyek din ku gefê li jiyanan zarokên serşeqaman dixwe, nemaze regeza mê û bi tewahî rê ji bo vegeriyana wan bo nava malbatê de digire, ketine ber destdirêjî û azara cinsî ye. Kiryarek ku bi zorî û bi bikaranîna metodên tundûtûjî û gefkirin bi ser wan de tê sepandin. Pirraniya keçên ku ji malabtên xwe direvin û derdikevine nava şeqaman, tûşî destdirêjiya cinsî dibin. Tûşbûn bi nexweşiyên cinsî weke **HIV, Hîpatîta C** û nexweşiyên hundurî û... di encama destdirêjiya cinsî de çê dibin.

**4- Dûrketin û bîhanîbûn tevî xwe û tevî xelkê**:

Di rewşek han de xelk hez û desthilata xwe derheq ew cîhana ku pêk



anîne, ji dest didin û di encam de xwe têde weke bîhanî dibînin. Ji dîtina zanista civaknasî ve, bîhanîbûna mirovan tevî xwe, bi wateya qutbûna pêwendî di navbera takekes tevî xelkê û û hevwataye digel bêzarî ji hest û dûrkevtin yan cudabûna takekes tevî xelkê. Zarokên serşeqaman jî seba ewê ku pêwendiyên wan tevî civak û xelkên din pêka metod û şêwazekê taybetî nîne, bi fermî û bi kiryar pêwendiyên xwe ji endamên din ên civakê qut dikin û tu cure pêwendiyek sozdarî û mirovî di nava wan û endamên din ên civakê de namîne. Lewra seh bi bîhanîbûn û tenêtiyê dikin û tûşî nexweşiyên hundurî dibin.

**5- Ketine ber tundûtûjiya cismî û sozdarî:**

Seba vê çendê ku zarokên ser şeqaman ji hebûna serpereşt bi terzekê rasterast bêpar in û ji aliyê malbatê ve piştevanî ji wan nahê kirin, ji aliyê ew kesên ku weke mirovên kêm buha û sivik mêzeyê wan dikin, dikevine ber êrîşa fîzîkî û bi terzên cur bi cur weke lêdan, kutan û... dikevine ber destdirêjî û êş û azarên cismî û sozdarî.

**6- Pênegihiştin û nekemilîna kesayetiyê:**

Qonaxa zarokatî û nûciwaniyê bandorek pirr girîng heye li ser geşekirin û kemilîna kesatî û liv û tevger û riftara zarok û nûciwanan. Di vê qonaxa jiyanê de ye ku zarok jiyanek serbixwe, rêzgirtin ji xelkê, liberçavgirtina mafê xelkê din, yasa û rîsa, çawaniya riftarkirin tevî xelkê û... diceribînin û hîn dibin. Çimku di vê qonaxê de şiyanên hundurî ên mirovan ji aliyê malbat û dibistanê ve tê peyda kirin û bihêzkirin.

Bêşik ew zarokên ku di şeqaman de jiyanê dikin bêpar in ji hemû aliyên perwerdehiyê ku di nava malbat û dibistanê de bi wan didin hînkirin. Eva jî berevajiyê mafê zarokan e, çimku her zarokekê mafê vê yekê heye ku bibe xwediyê kerameta mirovî a xwe û berdewam cehda pêşxistina kesayetiya xwe bide.

**7- Bêbeşbûn ji bidestxistina şiyanên jiyanê:**

**Murîs Ey Elyas,** şiyanên jiyanê bi vî awayî pênase dike: “şiyanên jiyanê bi wateya çêkirina pêwendî tevî kesayetiyek baş û bibandor, cîbicîkirina erkên civakî, cîbicîkirina biryarên rast û dirust, çareserkirina pirsgirêkan bi awayên aştîxwazane û bê bikaranîna herterze metodekê ku derbe li xwe û hevalên xwe bide”.

Hinek ji wan şiyanên ku hewce ne mirov di jiyana xwe de bidest bixe, bi awayê jêrîn in:

***- Şiyana çareserkirina pirsgirêkan***

***- Şiyana biryardanê***

***-Şiyana çêkirina pêwendiyên bibandor***

***- Şiyana berbirûbûn tevî dilkutokê (Strêsê)***

***- Şiyana nasîna xwe***

***- Şiyana hizrîna rexnegirane***

**8- Xazokîkirin:**

Yekî din ji çalakiyên zarokan bona bidestxistina bijîva jiyana xwe, xazokîkirin e. Bo ewê ku dahatek zêde hebin, neçar in hîn bibin ku çawa dilovaniya xelkê bo aliyê xwe ve rabikişînin. Ew bona rakişandina dilovaniya xelkê hînê vê yekê dibin ku çawa xwe weke mirovekî kêm endam nîşan bidin û gellek metod û şêwazên din ku dilê her mirovekî mirovdost dihejîne û bo aliyê xwe ve radikişîne.

**9- Tûşbûn di nava girûp û bandên qaçaxçî û xirabkar:**

Metirsiyek din ku gefê li jiyanan zarokên serşeqaman dixwe, tûşbûna wan e di nava grûp û bandên xirabkar û qaçaxçî de Veguhastina madeyên hişber yan her alav û amarazek qaçax ku ji rêya zarokan ve senahîtir e, lewra bo ewê ku veguhastina madeyên hişber bi senahî bê encamdan, ji zarok û nûciwanan mifah tê wergirtin. Ji aliyekê ve grûpên xirabkar bi dana pereyek kêm ev karê pirr metirsîdar ji rêya zarokan ve encam didin û ji aliyek din ve ger zarok ji aliyê polîsan ve bên girtin, cezayek kêmtir ji wan re tê diyarîkirin.

**Xwefiroşî**

Zarokên ser şeqaman bo ewê ku bikaribin jiyana xwe bidomînin, neçar in çalakiyên aborî encam bidin, Girûpek ji wan rengkirin (boyax) a pêlavan û gulfirotin û... hildibijêrin Desteyek din, nemaze regeza mê, seba senahîbûna kar, laşê xwe difiroşin û ji vê rêkê ve bijîva jiyana xwe dabîn dikin. Zarokên han ji vê riyê ve tûşî nexweşiyên cur bi cur weke îdz û hîpatayda C û... dibin û seba ewê ku tevî zor kesan pêwendiyên cinsî hene, dibine sebebê belavbûna van nexweşiyan di civakê de.

**Çavkanî: Pirtûka “ Kûdekan wa nucewananê xiyabanî”**

# Nêrîna Dr. Qasimlo Li Ser Pirsên Civakî



**Ceifer Mubeşirniya**

Dr. Qasimlo kesayetiyek bû ku buhayek girnîg dida pirsên civakî. Wî herdem digot birêvebirina Kurdistanê gellek ji azadkirina kurdistanê zehmetir û dijwartir e. Dr. Qasimlo baş agadarê pirsên civakî bû û berdewam hewla dîtina rêçareyên baş bi cî dida bona çaresekirina pirsên civakî. Anîne berbasa sosiyalîzma demokratîk jî her di vê pêwendiyê de bû. Qasimlo di destpêka pirtûka xwe a bi navê kurtebasek li ser sosyalîzmê dibêje: Pirsa kurd tenê pirsek siyasî û netewî nîne, belkî pirsa civakî jî pirsa gelê Kurd e. Dr. Qasimlo her di vê pêwendiyê de mînakên wek PDK Îraqê û Partiya Komonîst a Îraqê tîne û dibêje: PDK Îraqê di destpêkê de xebata xwe zêdetir terxan kiribû bo xebata netewî û partiya Komonîst a Îraqê jî zêdetir buha dida xebata civakî û xebata çînayetî. Lê di rastî de herdu partî di meşandina vê siyasetê de tûşî şikistê hatin, lewra di dawiyê de gihîştine vê encamê ku hewceye buhayê bidin herdu pirsan.

Li destpêka damezirandina Partiya Demokrat a Kurdistanê de, pirsên civakî girîngiyek taybet hebûne û di dema desthilatdariya Komara Kurdistanê de jî di herêma bin desthilata Komarê de gelek xizmetên civakî hatin kirin. Piştî roxana Komara ciwanmerg a Kurdistanê heya 24 salan çalakiyên PDKÎ di vê pêwendiyê de hat sekinîn. Dr. Qasimlo piştî ewê ku vegeriya nav xebata rizgarîxwazane a gelê kurd, girîngiyek zêde dide pirsên civakî. Navbirî her di destpêka xebata xwe de li dijî gişt wan dab û edetên paremayî ên civaka me weke binpêkirina mafên jinan, bêparkirina wan di xebata siyasî û navendên desthilat û îdareyan de, pêşgirîkirin ji xwendina keçan ji aliyê malbatan ve, bi zorî zewicandina keçan, bexşîn û dana kecan seba çareserkirina pirsên xwîndariyê, marekirina di nav landikê de, tengkirina çarçoveya karê jinan di nava mal de, bi rewa zanîna lêdan û azardana jinan ji aliyê mêran ve, bi rewa zanîna anîna 4 jinan bo mêrekê û..., de sekinî.

Dr. Qasimlo giringiyek taybey dida jinan û berdewam hewla rakişana wan bo nav refa xebatê dida. Qasimlo bawermend bû ku pêşkevtina civakê di warên siyasî, aborî, civakî, çandî û.. bê beşdariya niviya endamên civakê anku regeza mê, pirr zehmet e. Wî qet bi çavek sivik mêzeyî regeza mê nedikir û bi tewahî dijî tundûtûjî û abartayda regezî bû. Ew li ser vê bawerê bû ku nabe jin li hember wan zilm û zoriyan bêdeng bin, çimku bêdengbûn li hember zilm û bêdaiyê zêdetir rê xweş dike bona wan hemû bêdadiyan.

Navbirî pirr girîngî dida zarok û ciwanan û herdem digot ku zarok sermayeya pêşeroja netewa Kurd in. Wî ji rêya partiyê ve herdem hewil dida derfeta perwerdehiya zanistî bo zarokan, di her rewşekê de pêk bîne, herwiha pêkanîna derfeta xwendinê ji wan re, rê valakirin ji bo ciwanan bona bidestvegirtina desthilatê û rakişandina wan bo nav qada siyasetê de ji xebatên Dr. Qasimlo bûn. Herwiha hewildan bûna çareserkirina hin pirsên din ên weke başkirina saxlemiyê di Kurdistanê de û jinavbirina bêdadî di parvekirina erdên çandinê û akincîbûnê, danîna bernameyek ji bo gund û bajaran û...

Wî ji rêya bi qenaet gihandina endamên partiyê karî di warên han de xizmetek berçav bike.

Bi wan hewlên Dr. Qasimlo, dîrûk şahid e ku partiya wî li kêleka xebata siyasî û çekdarî û hebûna pirsgirêk û kêmasiyan, çawa xebata civakî jî didomand û hewla cîbicîkirian dada civakî dida.

Dr. Qasimlo di kongireya 4 a PDKÎ di sala 1358 a rojî de ji zanista xwe ya profsional a abûrî û herwiha zanyariyên pêwîst di warê civaknasiyê de mifah stand û bernameyek ji bo xizmetkirin bi civaka xwe raçand. Ew bername bi hûrî di rapora Kongireya 4 ya partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, di beşa tekoşîna civakî de hatiye ku emê bi kurtî îşare bi piraktîze û birêvebirina hin beşan ji wê bernameyê bikin, ku Dr. Qasimlo weke erk xistibû stûtyê hêz û organên taybet ên wan beşan di nav partiyê de. Dr. Qasimlo bi gazîkirina çend pijîşkên binav û dang ên Feransî bo Kurdistanê hem ji bo hînkirina kadrên dermanî ên partiyê û hem jî ji bo çareseriya birîndaran, herweha xizmetkirin bi xelkên nexweş, karî di deverên dûrdest ên



kurdistanê de hem nexeşxaneyan ava bike, hem jî çendîn kadrên dermanî di nava partiyê de perwerde bike.

Yekî din ji karên girîng ew bû ku dema bidestvegirtina desthilatê ji aliyê rejîma Îslamî di Îranê de, xwendin hat sekinîn. Lê Dr. Qasimlo ji riya Partiya Demokrat ve nehêşt pêvajoya xwendinê bisekine, ji aliyekê ve ji kadro û pêşmergeyên xwendewar weke mamostayan, mifah werdigirt, ji aliyek din ve bi wan xizmetên Partiya Demokrat karî hejmarek berçav ji mamostayên kurd bo aliyê şoreşê ve rabikişîne. Navê mamostayên şoreşê ji xelkê Kurdistanê re pir nasîyar û xweştevî ye.

Dr. Qasimlo herwiha navendek bi navê beşa Qezayî anku beşa dadê, di nava partiyê de ava kir ku karê wê xizmetkirin bi xelkê û çareserkirina pirsên wan bi terzên adilane û miroviyane bû. Yekî din ji karên girîng ên Dr. Qasimlo parvekirina erd û ziviyan bû ku wê demê piraniya zevî û erd di bin destê Axa, Derebeg û serok eşîran de bû. Ew karê han ji bo Dr. Qasimlo ewqas girîng bû ku di nav beşa qezayî de komîsyonek bi navê komisyona Zevî û zaran di Partiyê de ava kir. Herçend ku Qasimloyê rêber bi xwe di malbatek eşîrî de ji dayîk bibû û bavê wî axayê çendîn gundên geliyê Qasimlo bû, lê bi xwe bi tewahî li dijî derebegî û hizrên eşîrî disekinî. Çimku wî baş dizanî ku pêkhateya eşîrî çi derbeyekê li bizav û xebata azadîxwazane a gelê Kurd dide û vê bizavê paş dixe.

## Rewşa Saxlemiya Du Girtiyên Kurd Nebaş E

Rewşa saxlemeya girtiyekî kurd bi navê Mihemed Ebdulahî di girtîgeha bajarê Mehabadê de nebaş e.

Ajansa Nûçegihaniya "Mukrian"ê di vê derbarê de da zanîn, Mihemed Ebdulahî nêzîk sê mehan e ku di girtîgehê de ye û bi sedema birînên tiliyên destên xwe, êşê dikîşîne û hewceyî bi çareseriya bijîşkî li dervey girtîgehê heye. Hêjayî gotinê ye ku hêj desthilatdarên girtîgehê rê nedane Mihemed ku seredana pijîşkê li derveyî zindanê bike.

Hêjayî gotinê ye, Mihemed Ebdulahî, bi tawana hevkarîkirin tevî yek ji partiyên Kurdistanî ên dijberî rejîmê hatiye girtin. Vê çavkaniyê herwiha da zanîn, girtiyekî din ê Kurd bi navê Xelîl Mistefa Reûf di girtîgeha bajarê Seqizê de, bi sedema ifûneta sîngê û gewriy di rewşeke saxlemî a nebaş de ye.

Tê zanîn, navhatî çend caran daxwaz kiriye ku bo çareseriya bijîşkî bo dervey girtîgehê bihê şandin, lê berpirsên girtîgehê daxwaza wî red kirine.

Hêjayî gotinê ye, Xelîl Mistefa Reûf, di sala 2005'an, de ji aliyê Dadgeha Şoreşa bajarê Seqizê ve bi tawana peywendî tevî partiyekî dijberî rejîmê, biryara 16 sal cezaya girtîgehê bi ser de hatiye sepandin.

# BEDBÎNÎ



ADAR JIYA
adarjiyan@mynet.com

Her çend ku mirov di jiyana xwe ya asayî de tûşî nexweşiyên cestî, derûnî û fîzîkî tên jî, di heman katê de nexweşiyên civakî, ramyarî û çandî jî tûşî mirovan tên. Û ev nexweşiyên heftpençe mirovan ji hev û din dixin, pergende û perîşan dikin.

Civaka ku ji her aliyê komelayetî ve hêjar, qels û lewaz be, pêkan e ku tenduristiya wê/ê ya derûnî jî zêde nebaş be. Çimkî, di mercên îroyîn de tenduristiya derûnî ya mirov ango, rewşa wî/ê ya arişî her gav li gorî rewşa jiyana wî/ê ya daringî dirûv digire. Îcar wekî ku tê zanîn, li ser sererda ku em lê bi cih bûne, rewşa mirov û civakê ya aborî jî ewqasî ne çê ye.

Çawa ku hin nexweşiyên fizîkî yên malxerab hene û roja ku mirov ji dayik dibe bi berstûka mirov dizeliqin wekî ku nehêlin mirov bi jiyana xwe şa bibe, xwe bi her awayî bera nav cerg û hinavê mirov didin. Û heta ku mirov ber bi gorê de neşînin dev jê bernadin. Bi heman awayî hin nexweşiyên civakî jî hene ku heta mirov sewsî nekin û wî/ê nexurifînin tucar dev ji mirov bernadin. Ango ji ser wî/ê venakişin.

Nexweşiyên civakî, wekî jêvegirtina nexweşiyên şewbî û têger in. Ji mirovekî/ê derbasî mirovê/a din dibin. Bi wê jî nayên ser; derûniya mirov serobin, mêjiyê mirov çelq, hest û ramana wî/ê tevlîhev dikin û wî ji eyarekî derdixin dixin eyarekî din. Dîsa çawa ku hin nexweşiyên fîzîkî yên ku li gorî dem û serdemên dîrokî kêm an zêde dibin hene. Ji aliyê din ve hin nexweşiyên ku çarmedor didin ber xwe, bi awayekî bandorker belav dibin hene.

Bi heman awayî hin nexweşiyên heynî(zemane), yên ku xwe berdidin nav dil û mêjiyê mirov û çavî bi çavî li şaneyên wî/ê belav dibin hene. Her wiha nexweşiyên ku di hest û ramana mirov de diçêrin û dikurisînin jî hene... Ji wan nexweşiyên heynî yên îroyîn yek jê bedbînî (reşbînî) û ya din gilîdarî (gazindoyî) ye . Nemaze di van salên dawî de ev herdu nexweşiyên bêbav wekî du nexweşiyên heftpençe raselitînî ser serê civaka me bûne; nahêlin ku em ber xwe bibînin.

Carekê bedbînî, zivêrbûna ji jiyanê û kîn û rika li hemberî tevê cîhanê ye. Ma xune bera ev jiyana ku di oxira wê de hezar mirin dikevin rêzê û ji bo wê dor digirin, ne hêjayî jiyîn û nirxdayinê ye ku mirov ewqa jê zivêr dibin û mirûzê xwe lê tirş dikin ? Gelo sedem çi ye ku bedbînî nêzîkî wê dibin ? An jî gelo li ser vê rûzemîna ku îro şeş-heft mîlyar mirov di xwe de dihewîne, tu kesên bi dilê wan nîn e ku mirov paşê xwe didine hev û din û ji tevê mirovahiyê dixeyidin?

Victor Hugo: dibêje: "Xweşdîtin, li cîhanê tiştê herî baş e." Bi rastî, xweşdîtin û xweşbînî dijminê reşbîniyê ne. Ango peyva "xweşbînî" dijwateya peyva "reşbînî" ye. Reşbînî, hestek wisa neyinî ye ku her gav jiyan û cîhana mirovan ji asayîbûna xwe reştir û bedtir nîşan dide. Xweşbînî jî her gav nayê wateya erênî an rasteqîniyê. Dibe ku hestên xweşbîniyê jî gelek caran mirov ber bi xapandinê de bidehfîne.

Lewre ew jî jiyan û cîhanê bi awayekî awarte xweş û çak nîşan dide. Çawa ku reşbînî ne hesteke erênî be, xweşbînî jî ewqa ne hesteke neyinî ye. Belê ne rasteqînî ye jî. Ya rast ew e ku xweşbîniya herî neçê dîsa jî ji reşbîniya herî çê, çêtir, baştir û erênîtir e. Lewre hest û feraseta reşbîniy, mirov ber bi dijminatiya jiyanê; belê xweşbînî, mirov ber bi dostîtî û hevalbendîtiya jiyanê de didehfîne.

Gilîdarî, her çend ku ne bedbînî bi xwe be jî di bin hevhîkariya wê de xwe dide der. Di bingeha gilî û gazincên mirov de, dîsa nerazîbûneke veşartî ya ji jiyan û cîhanê heye. Jîxwe kesê/a gazinoyî tu kesî û tu tiştî nahebîne û naecibîne. Bi awayekî reşbînî nêzîkî mirovan dibe. Her gav bûyeran bi pêşdaraziyên vebir û misoger hildide dest û dinirxîne. Bûyer, qewam û lêqewmînên civakî û xwezayî li gorî hestên xwe şîrove dike. Yanê gilîdarî, nexweşiyeke êşdar û bêderman e. Hem xwediyê xwe û hem jî kesên din dêşîne û zivêr dike.

Mixabin îro ev bedbînî, bêhêvîtî û gilîdariyên ku dibin sedema jihevketin û rûxandina civakê, her yek jidestçûna nirx û hêjahiyên me yên mirovî û neteweyî ye. Ev kambaxiya hanê di nav dezgeh, sazî, rêxistin û komeleyên me de bi hemû tirsnakî û erjengiya xwe, xwe dibeliqîne. Û gel û civakê ji binî d e zivêr û tengezar dike. Bi vî awayî pêwendiya navbera takekes û civakê ya rojane jî dikeve tengaviyê.

Madem ku pirsgirêk ji aliyê mirov de pêk tê, naxwe çareserî jî dîsa di destê mirov de ye. Ji bo wê divê mirovên ku xwe berpirsiyar dihesibînin, rojekê berî rojekê xwe ji van nexweşiyên hestko û hêvîkuj reha bikin.

Kaniya Helbestan

## Qasimlo



### Îbrahîm Seaydo

Te pişta xwe dabû kîjan milkî
kîjan warî, kîjan ehlê bawerî ?
Li wan şarên ku qesda canê me kirin
Telqîn êdî li me naçe
Sewta selawatên me biliyayî
Te digot "em bêxwedî ne,
lewre, peyva sereke ye
aştî û wekhevî »

Doktor,
Erê,
Serçavan,
Lê, ez birînên te çawa derman bikim?

Pel û qelem li deverine dûr man
Derbirîna kerbê bi kêrî çi ma
Tu serborîya milletekî wendayî dinivîsî
Kî dixwîne ?
Kî dibêje ?
Temam,
serçavan,
em ê şerrî nekin
û nekujin
Lê, doktor, ka bêje hela
Ma ez birînên te çawa derman bikim ?

Xezalên ku te dabû pey û
Xeyalên ku te azana wan dikir
Bi xwînê hatin şuştin û
Tune bûn...

Refên kevokan li dora te ne doktor
Flamîngo, bi hawarê
Kerîyên me li zozanan bê xwedî
çem zûha, zevî dêm,
dest terîkî
aştî
nema tê êdî
Hêvî,
hema ew
Lê, doktor
Ka tu dev ji van tiştan berde hela
û bibêje
Ez birînên te çawa derman bikim ?...
Îbrahîm Seydo Aydogan, Parîs, 13 tîrmeh 2009

# Rewşenbîrî Li Dîtingeha Fîlsofan Ve



**W: Şehab Xalidî**

Dema ku em peyva rewşenbîr dixine ber berhevidanan, rast em dikevne bîra kesekî/ê ku asoya dîtina wî/ê û bîr û hizr û ramanên wî/ê wek rojê ronahî ye, û diçilvil e. Lê hekî em li rewşenbîriyê bi wateya diyaliktîkê binêrin, rast divêt em bîr ji hertimîbûn û kemilînê bikin.

Peyva rewşenbîr rast wergêrandiya peyva "intellectual" a Feransî û Înglîzî ye. Pêştir û li qonaxên pêşîn de ew peyv bi wateya şikandina zincîra kevneşopiyê û guhertinxwaziyê û berfirehtirbûna şaristaniyeta rojawa li Îranê de bû, ku vê yekê bi rewşenbîriyê re têkiliyekî rasterast hebû. Wê demê rewşenbîr bi wan kesan re dihat gotin ku dewrana xwendina bilind li rojawa de bidawî anîban, yan jî peyrewî ji bîr û boçûnên rojawayî kiriban.

Pênaseya peyva rewşenbîr di nav çandên cur bi cur de dikare alîkariya pitir a me biket bona têgihîştina baştir ji wateya wê a rastîn.

Wajenameya Feransî a Lawris dinivîse: rewşenbîr ew kese ye ku wek kar û şixol berdewam di nav bîrkirinê de be. Wajenameya Feransî a Rubêr jî her pênaseyekî bi vî awayî encam daye. Wajenameya Îngilîsî a Aksford jî dinivîse, rewşenbîr ew kese ye ku xwediyê hêza bîrkirinê a herî baş û têgihîştineke baş be. Wajenameya Îngilîzî a Kalic jî bi awayên cur bi cur ew peyv pênase kiriye. Li gorî yek ji wan pênaseyan rewşenbîr pitir mijûlî bîrkirinê ye, ne eva ku bikeve jêr bandora hest û xeyalan.

Dema ku mirov ji hereketa dîrokê an jî ji rasteriya bûyerên civakî û siyasî û mirovî binêre, rewşenbîr dîrokê ava dikin, an jî aliyê kêm li afirandina wê de rolekî hêja dilîzin, hekî rewşenbîr xwediyê bîr û ramanên kûr û berfireh nebon, dîroka mirovahiyê ji bilî rengvedana hovîtiyê yan jî kuştar û talanan tu tiştek din nedibû, rewşenbîran çand, huner û şaristaniyet nîşanî mirovahiyê dan.

Yekemîn kesê ku navê wî di vî warî de li dîroka miovahiyê de diçiruske rewşenbîrê bi navê "Hirms" e. Ew kesayetiyê ku xet, muzîk, û kar û barên çandiniyê fêrî mirovan kir. Di rastî de "Hirms" mirov ji kûrahiya jiyana li îşkevtan û li tarîtiya dîrokê de derxist û rengekî nû da jiyana mirovahiyê. Ji aliyekî dî ve em dikarin qala rewşenbîrê serdemê xwe anku zerdeşt, pêxemberê Îraniyan jî bikin. Siruda Gatha yek ji sirudên olî û zanistî ên herî kevn ên cîhanî li dewrana Zerdeşt de ye. Ew sirud di qonaxekê de ku mirov di warê bîrkirinê de dewrana zarokatiya xwe derbas dikir, wek şemalkekê, ronahî da canê reş û tarî ê mirovên serdemê kevn.

Di vê serdemê de ku ne ji exlaq, şaristaniyet, çand û ne jî ji mirovahiyê tu basek nebû. Zerdeşt di wê serdemê de bi mesaja hizr û ramana baş, gotara baş û kiryara baş ronahî da rih û canê razayî ê mirovan.

Ji aliyê din ê cîhanê jî, Buda derûna mirovan hejand û di vî warî de şorişek afiarand.

Di rastî de tenê xwandina bilin a zanîngehê nikare nîşaneya rewşenbîrbûnê be, belkû rewşenbîr xwediyê mesaj û xwediyê sozekê civakî û mirovî ye, û divêt wek erdhrjekê herêma derdora xwe û dîrokê bihejîne.

Engîzasyon li sedsala navîn de wek volkanekê bi ser serê fîlsof û zanayan de hate xwar û bêhna rewşenbîran çik kir.

Galîle bi tawana eşkerekirina bîr û ramana xwe derheq zivîrina erdê bi dewra rojê hate dadgehîkirin. Curdano birunu, helbestvan û fîlsofê sedsala şazdê yê Ewropa'yê bi tawana vedîtina "hêla bi şeklê beyzî a seyareyan" ku li dewra rojê dizivirin, û hebûna bîr û ramanên tundrewane zindî-zindî di nav agir de şewitandin. Niyoton ji tirsê çevdêriya tund a kilîsayê bi ser ramanên xelkê de pirtûka xwe a di warê "eslên navkî" bilav nekir, û Dikart ji tirsê wan de revî û çû Hulendê.

Li encama zextên kilîsayê de rewşenbîrên Ewrupayê weke Voltê, û nivîskarên wek Dîdro, û Dalambêr û herweha Janjak Roso li hemberî hêz û deshilata kilîsayê de rawestan.

Erestu jî wek yekemîn mamostayê ku di cîhanê de hatiye naskirin, bingehdanerê zanista mentiqê ye. Lê bîr û hizra wî guherînek weha li dîtingeha wî de pêk anî ku heya heyamê duhezar salî jî tu bîrmendekî nedikarî li hember zanyariyên wî de bikeve nava behs û gengeşeyan de. Higil û Kant li sedsala bîsan de û herweha Karl Marks jî, her yek ji wan



bûne sebebê pêkhatina liv û tevgerên befireh ên rewşenbîrî di asta cîhanê de .

Marks ji wan fîlsofan e ku hinek ji nivîskaran peyva rewşenbîr ji bo wî bi kar anîne. Li Rusyayê de jî li sedsala nozdê de Nihêlîstan ku bi çavê rexneyî li rewşa heyî dinihêrin, xwe wek rewşenbîr dihesêbandin. Her çawan ku me bas lê kir pîvana me ji bo rewşenbîrbûnê afirandina hereketekî nû di nav zanist, felsefe û hunerê de ye. Rewşenbîrê rastîn divêt bi hunera xwe wateyekî nû bide jiyana mirovan, û bi ramanên xwe û nivîsên xwe cîhanek weha ciwa û pir ji ronahî biafirîne, ku bibe sedema kamilbûna hizrî, derûnî, û mêjiyê mirovan, û bi vî awayî termê zordariyê bi ser serê piştevanên wê de biherifîne.

Cîhanbîniya rewşenbîran cîhanbîniyeke pirr kûr e. Dîtina cîhanê, jiyan, nasîna cîhanê, û her cure bandorwergirtin û bandordanîn li ser warê derûnî û meinewiya kesên dî, divêt kûr, pirr naverok û hişmendane be. Eva rast nuqteya li hemberî cîhabîniya xelkê asayî ye. Xelkê asasyî yanî ew xelkê ku tu karê wan bi hizr û ramana serûber û zanstî û felsefî neketibe. Cîhanbîniya rewşenbîrî divêt bibe sebebê guherîna cîhanbîniya xelkê asayî, û pêvajoya jiyana wan biguherîne û bandorê li ser ramanên wan derheq jiyanê danêt. Rewşenbîr li hereketên xwe ên civakî de divêt pêşeng, afirîner, bernamerêj, bîrmend û hander bin. Xelkê asayî hewcedarê hereketên rewşenbîran di warê guherînkariyên civakî û hizrî de ne.

**Çavkanî: mehnameya "Îran mêhr"**

**N: Dr. Muhsin Ferşad**



**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail: agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com**



# Sîmaya Demokrat Ji Dîtingeha Dr. Qasimlo Ve



* Demokrat bawerî bi resaleta Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê heye û vê Partiyê bi rêber û rêkxerê xelkê Kurdistanê dizane.

* Demokrat bername û pêrewa hundirîn a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê pesend kiriye û li tekoşîna siyasî a xwe de peyrewî ji siyaset û rênimayiyên vê partiyê dike û ji bo pêşdebirina vê siyasetê, ji tu fidakariyekê xwe naparêze.

* Demokrat şanaziyê bi endametiya di Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, Partiya Pêşewa Qazî Mihemed û hezaran şehîdên serbilind de dike ku li pêxema azadiya Kurdistanê de canê xwe gorî kirine.

* Demokrat ji girêdayîbûnê bêzar e, lewre pêxweş e ku Partiya wî bêy tu girêdayîbûnek li biryardanê de bi tewahî azad û serbixwe be.

* Demokrat piştewanê xebata rizgarîxwaziya gelên zulmlêkirî yên seranserê cîhanê ye.

* Demokrat alîgirê azadî û demokrasiyê ye û bawerek kûr bi demokrasiyê heye û li kar û kiryarên xwe de li hember hemû hêzên siyasî û civatên xelkê de, ji vê esl û pirensîpê îlhamê distîne.

* Demokrat ji bo anîne serkara sîstemek demokratîk li ser bingeha Piloralîzmê xebatê dike.

* Demokrat ji bo jiholê rakirina stema netewî xebatê dike.

* Demokrat, nasyonalîstê berçawteng nine û rêz û hurmetê ji dostaniya di navbera gelan de digre û piştewaniyê ji mafê tev gelan dike.

* Demokrat parêzerê mafên zehmetkêşan e û xebatê li dijî her cure çewsandinek mirov bi destê mirovan dike.

* Demokrat alîgirê wekheviya mafê jin û mêran di nav civak û malbatê de ye.
Demokrat mirovdost e û girîngiyê bi dostaniya navbera mirovan, bêy liberçavgirtina regez û meseb dide û her terze regezperestî, faşîzm û pawanxwaziyekê mehkûm dike.